# Nan û xiyevan

**Meryem**

Îro rojê zarok bi sedemên aborî, şer, belengazî, tund û tûjiyên malbatî û hwd... bi sanahîtirîn alavên mifahwergirtina şaş û çewisandinê wekî: karên neçarî mîna (şolkirin di kargeh û kolanan de), bazerganiya muxedirat û xazokiyê hatine hesibandin ku tu encam û diyariyek ji bilî desthilgirtin ji xwandinê, xwarina kêm, bêpar bûn ji tenduristiyê, bêparbûn ji elimandin û perwerde û... ji bo zarokên çewisandî û zarokên xiyevanî pêre nine. Zarokên xiyevanî goriyên rewş û zirûfên dijwar yên civakî, aborî, malbatî, çandî û jiyarî yên xwe bûne ku bi sedema bêxwedîbûn yan jî xwedîbûna nebaş têne perçiqandin û mişextîbûn û nebûna malê, mezintirîn zulm e ku derheq zarokên çewsandî bi taybet zarokên xiyevanî de dimeşe. Lê divêt em bizanin ku 80 ji 100'ê ya zarokên xiyevanî, ew zarok in, yên ku kar dikin. Kar û şola zarokan bi van tekoşînan tê gotin ku di warê rewanî, cismî, civakî û sincî de ji bo zarokan bi xof in. Karê zarokan di jiyê kêm de pirsgirêkên wekî desthilgirtin ji xwendinê, zext û givaşên ruhî-rewanî, pîrbûna bilez, diltengî, nebûna baweriyê bi xwe pêre ye.

**Zarokên xiyewanî ji du beşan pêk têt:**

1- Zarokên girêdayî bi xiyevanan: Ev zarokane cuda ji xiyevanê tu êvirgeh û serpenayeke din ninin, renge malbatê ew ji malê derxistibin, yan jî tu kes ji endamên malbata wî sax nemabin. Zarokên han ji bo zindîmanewa xwe dixebite û şevê jî di êvirgehên wekî avahiyên kavilbûyî de diqetînin.

2- Zarokên di xiyevanê de: Ev zarokane hertim malbata xwe dibînin û nemaze şevane jî ji bo nivistinê vedigerne mala xwe. Ev zarokane bi sedemên hejarî û "Sû îstifadeyên" cinsî û cismî di malbatê de, piraniya dema xwe di xiyevanê de diqetînin. Piraniya zarokên xiyevanî bi sedema belengaziyê rû dikene xiyevanan. Ev zarokane ji bo destve anîna bijîvê ji bo xwe û alîkarî bi malbatên xwe dest bi karên xirab wekî: xazokî, şuştina otomobêlan, bazirganiya muxediratê, boyax lêdana solan, pêwendiyên cinsî, destfroşî didin. Yan jî bi sedema peyda kirina serpenahê ji bo endamên din malbatê rû li xiyevanan dikin. Pirsgirêkên malbatî jî dibin sedema vê yekê ku zarok jiyana di xiyevanê de baştir ji berengarbûn tevî arîşeyên malbatî wekî: pirsgirêkên di navbera dayk û bav de, mifahwergirtina cinsî û cismî ye. Ew tiştên ku xiyevan ji bo zarokan bi diyarî tîne, tiştek nine ji bilî hejarî û nexwendebûnê, dadmendiya ne adilane, belengazî û nexwandinî. Ew zarokane ku goriyên "tezada tebeqatî" ne û bi sedema nebûna misogerkirina îmkanatên hewce û nemaze karîna çûn bo xwandingehên dewletî jî ninin û piranî di van cihan de dijîn ku ji tenahî û asayişa hewce bêpar in û destê wan jî bi îmakanateke tendirustiyê nagihîje.



Rewşa çêbûna tund û tûjiyê: Bê guman xiyevan ciheke hêmin ji bo jiyanê nine, lewra renge di hinek cihan de tevî azarên cismî û nemaze mirinê jî ji ber tund û tûjiyê berengar bin. Çavkaniyên tund û tûjiyê jî dikare eve bin: polîs, bandên xirabkaran, bandên bazirganiya mewadên bêhişker, bandên bazirganiya cinsî û hemû ew zarokên din yên xiyewanî bibe.

Dadmendiya neadîlane: Civak hertim zarokên xiyevanî wekî zarokên pir pirsgirêk dihesibîne ku ji bo civakê bizirarin û arîşeyan diafirînin. Civatên xelkê wisa difikirin ku zarokên xiyevanî nahêne kontirol kirin û bi pirsgirêka muitadbûn bi muxediratê berengar in ku ev nêrîna nerênî rih nekarîna civakê di haydarbûn ji endamên xwe de ye.

Pirsgirêkên cismî: Zarokên xiyevanî ji ber kêmxwarinê bi kêmxwîniyê û kêm wîtamînê tûş dibin ku bandora nerênî li ser geşekirin û mezin bûna wan de bi cih dihêle.

Pirsgirêkên Ruhî-rewanî: Piraniya wan zirûf û bûyerên ku di gava yekem de zarokan bo aliyê xiyevanê pal dide bandorên nigetîv li ser saxlemiya ruhî ya wan bi cih dihêle. Ew zarokane ji ber wê ku hertim ji herêmekê bo herêmeke din û ji bajarekê ji bo bajareke din di meşiyanê de ne û ev terzê jiyanê dibe sedema dûrketina civakî, tinêtî û kosp afirandin li pêş geşbûna têkiliyên atifî yên wan li gor derdora van dibe.

Azarên cinsî: zarokên navhatî zaftir ji zarokên din dikevine ber şop û êrîşa cinsî. Lê ya balkêş eva ye ku keç pitir ji xortan di hêla çewsandin û mifahwergirtina xirab ya cinsî de cih digirin. Divê bizanin ku di vê navberê de zarok gunehbar ninin, eva sîstema hikûmetî û civakê ye ku terzê jiyanê ji bo zarokan diyarî diket. Belengazî û cudahiya tebeqatî ku diyariya rejîma Komara Îslamî ji gelên Îranê re yê bûye sedema wê yekê ku hejmara zarokên xiyevanî pitir bibin û di pêşerojê de ger ev rewşe bidome, bûyereke mezin ya mirovî dê biqewime. Lewra tenê li dema guhertina rejîma Îranê ye ku tîrojkên hêviyê di pêşerojê de bibişkivin.

**Jêderên gotarê di arşîva Agirî de hatine parastin.**

# Kurd û hunera Şanoyê

**(Beşa 3 û dawî)**

**Soran Rizayî**
**soranrezai@yahoo.com**



Di du beşên pêşîn yên vê gotarê de me basa hîmên çêkera şanoyê kir, herweha me ronahî xiste ser çawaniya hatine rojeva navê şanoyê di nava civaka Kurdî de. Di beşên pêşîn yên vê gotarê de ji me re eyan bû ku heger Kurd afirînerê hunera şanoyê nebin jî, her nebe yek ji wan gelên hîmdar yê wê hunerê ne, lê tundbûna deshilat û derfetên siyasî bûye sedema vê çendê ku hinek gelên din ji vê hunerê xwedî derkevin û navê Kurdan ku hêjayî xwedîtiya vê hunerê ye li ser wê nemîne.

Di vê beşa gotarê de em dê li ser çawaniya hetne rojeva şanoya nûjen bo Îran û Rojhilata Kurdistanê bisekinin, ku di vê çendê de jî Kurd her pêşeng û rêveker in.

Di destpêka sedsala 20’an de (li sala 1930)’an Mîr Seyfedîn Kirmanşan ku li Tiflîsa Qefqaziyayê xwandina xwe bidawî anî bû, wergeryabû Îranê û di Kirmaşanê, Tewrêzê û Tehranê de şanoya nûjen çêkir. Ew yekemîn kes bû ku şanoya nûjen anî Îranê, herwiha yekemîn kes jî bû ku di Îranê de dêkor çêkir û Aksêsvar bi kar anî.

Yekem karê Mîr Seyfedîn **Leyla û Mecnûn** û **Xusro û Şîrîn** bû. Wî di heyamê 5 salan de çend şano yên bi navên: **Istidyoy Kirmaşan**, **Yûsif û Zuleyxa**, **Meşedî Îbad**, **Ezîz û Ezîzê** û yek du şanoyên din yên xiyevanî saz kirin. Mixabin carekî din ev seha şovînîstî a dezgeha serdest nema ku wan pêşkevtinan bibînin û Mîr Seyfedîn neçar kirin ku yan dest ji şanoyê bikêşe yan jî ji Îranê! Lê Mîrê hunermend nekarî wan şertan bipejirîne û di dawiyê de destê wî ji jiyanê berbû û çû ber dilovaniya xwe.

Piştî Mîr Seyfedîn, **Mîrza Teqîxanê Raber** koma şanoya **Eramene** pêk anî. Ev tîpe bi hilkevta avabûna yekemîn xwendingeha Kirmanşanê a bi navê **Kezazî** şanoyek pêşkêş kir. Piştre Xulamriza Parsa berpirsyariya tîpê digire stûyê xwe û çend şanoyên din ên bi navên: **Napêlon Bi Naçarî**, **Tacirê Vênîzî**, **Nexweşî Xeyal** û hwd... cuda ji raberî kirina çend şanonameyan, rêzdar Xulamriza Parsa şanaziyekî din jê kire nisîbê xwe, ev jî eva bû ku wekî yekemîn hunermendê Îranî, jin jî anîne nava karê hunerî de û di şanoyê de pişikdar kirin.

Di sala 1947’an de Simayîl Şakirî ku endamê Eramene bû bi xwe komeke şanoyê ava kir ku Cewadê Gîtîara ji wan re şanoname dinivîsandin û xatûna Fexrî Asûrî ku yek ji kesayetiyên naskirî yê sînemaya Îranê yê wî çaxî û yek ji lîstvanên wê girûpê bû. Ew niha bi Fexrî Xurûş tê nasîn.

Yekem şanoya ku bi zimanê Kurdî di Îarnê de hate pşkêş kirin, şanoya bi navê **"Daykî Nîştiman"** bû ku di sala 1944-1945’an de heyamê 40 rojan hate pêşkêş kirin ku zêdetir ji 20000 kesan temaşevan hebûn, herwiha di serdemê Komara Kurdistanê û di bin siya Hikûmeta Kurdî li bajarê Mehabadê hate lidarxistin.

Hetanî niha jî kesayetiyên herî bi nav û deng yên şanoya Îranê Kurd in. Bo mînak ji wan kesayetiyan birêz **Dr. Qutbedîn Sadiqî** û **Bêhroz Xerîbpûr** ku zêdetir di warê şanoya zarokan de dixebitin. Nav û dengê wan kesayetiyên navdar li Îranê bigire hetaî Asiyayê de jî deng vedaye. Şanoyên **Bûke Şûşe**, **Sîber** û **Gerok** ji şakarên wan navdaran in.

Di warê şano û karê şanogeriyê de bajarên Kurdan ji çalaktirîn bajarn tên hesibandin ku di tev festîval û pêşbirkeyan de şûnpenceyên wan tên xuya kirin, ji wan bajaran mirov dikare ji Kirmaşan, Seqiz, Sine û Merîvanê wekî pêşengê vê hunerê nav bibe.

Di dawiyê de dixwazim carek din tekezê li ser vê çendê bikim ku sedema paşdeman û xuya nebûna me di astê navneteweyî de tenê û tenê nebûna deshilateke siyasî û hikûmeta Kurdî ye ku em hêvîxwaz in di pêşerojeke nêzîk de bibin xwediyê vê deshilatê û ev qêrîn û hewarên ku heta niha di qirka me de hatine xendiqandin, di şeklê şanoyê de cihê xwe bigirin û bi cîhaniyan bidin nasandin. Herwiha şanoyê bikin bi yek ji fakterên nasandin û selimandina nasnameya neteweyî û dîrokî ya xwe.

# Xweziya Dil

**Sadiq Eskerî**

xweziyek heye di dilê min de
nayê gotin, ax, kul û derd e
ji min heland cerg û hinav
wax lê yarê, şirîna min hawar hawar
nû jîna min, jîn û vîna min
hêsrên çavan, merhema dilê min
sorgula min, kaniya eşq û evîn e
per per nebe bi bayê payîza jiyanê
gorî te be şahiya dil, jîn û vîna min
wax lê yarê, kulîlka min hawar hawar
nû jîna min, jîn û vîna min
hêsrên çavan, merhema dilê min
tu neçe, min nehêle bi tenê
çi gavan tu ji hizra min nayê derê
bi te şadim li gişt kuncên cîhanê
wax narîna min hawar hawar
nû jîna min, jîn û vîna min
hêsrên çavên min, merhema dilê min

## Gotinên Pêşiyan

* Bextê Roma tu ne.
* Bi girî, ji gorê ranabin mirî.
* Bab rezek da law, law giliyak tirî neda bab.
* Çira ji kora re û def ji kera re bêfêde ye.
* Xaka jin û mêran ji hev e.
* Dermanê xwastinê dan e.
* Feqîr çûn diziyê, heyv ji êvar da derket.
* Hindik rindik e.
* Jinên qenc ji pişt mêrên xirab nasekinin.
* Malê axa diçe, canê xulam dêşe.
* Neçe şerê xal û xarziyan, neke hewar û gaziyan .
* Axavtina bi zîv bikre û bi zîv bifroşe.
* Av diçe, lê aş li cihê xwe de dimîne.
* Av şûna nan nagire.
* Azadî hat dinê, zimanê lalan hat vekirin.
* Barê serê bê aqil, ling dikişînin.
* Mirov pîr dibe, lê dil pîr nabe.
* Nêçîrvan nêçîra xwe nas dike.
* Agir bi agir venamire.
* Agir di kevne bizûtan de dimîne.

# Xaçepirs

A: Emîr Şuaîvend






**Asoyî**
**1.** Ast –Îbadetgeha Filan
2. Ava bi qur-Gilî, Gazinde
3. Hêk bi Îngilîzî – Dengê neyar – Notekî Musîqayê
4. Mang – Kewirê mezin
5. Bajarekî Kurdistanê – Kurê xezûrê keça me
6. Welatek e – Partiya Hîtlêr
7. Bawerî – Solên Hespan
8. Birayê bab – Navekî keçan – Wateya dayî jî dide
9. Daristan – Xwedê
10. Birîn – Çemeke

**Stûnî**
1. Sembol- Seyê nesax
2. Keştî – Mihî
3. Genim li wir dibe Ar – Qur – Ne bi Erebî
4. Bal, Sirinc – Lîstikeke Kurdî
5. Alavê ar dabêtinê – Helbestvanekî Kurd
6. Şaxevanekî Kurd ku giyanê xwe li dest da – Amrazekî şer
7. Jan kirin – Wacib
8. Eşîr – Şeytan –Di dengbêjiyê de ji bo tekûz kirina tona deng û helbestê tê bikar anîn.
9. Paytextekî Ewropî – Serbest.
10. Kargêrên dezgeha asayişa Turkiyê – Bajarek li Rojhilata Kurdistanê

# Zimanek dewlemend e ku were nivîsîn

Emîr Şuaîvend

Ziman tenê taybet bi mirovan e û tevî li dayîk bûnê bi wan tê bexşîn. Ziman rejîmek e ku ji çend remzên azad û ji destûrbider pêkhatî ye û ji bo veguhastin û ragehandina hest, bîr, hêvî û hwd... yên mirovan tê bikaranîn.

**Sapiyer**

Ji bo ku mirov ji hev fêm bikin divê ku bi hevra biaxivin û ji ber ku zimanê mirovan ne wekhev in, divêt ku ziman bê nivîsîn, îstandard kirin û wergerandin, ji bo hînbûna her zimanekê gereke ev ziman xwediyê her sê taybetmendiyan be, herwiha ji bo ku zimanek bi fermî bihê nasîn divê ku ji safiyên her sê pîvanên jorîn hatibe derbas kirin. Gelo zimanê Kurdî ji wan pîvanan derbas bûye?

Bê guman her Kurdekê ev çende bihîstiye ku li her deran tê gotin: **Zimanê Kurdî zimanekî dewlemend e** yan dibêjin: **Kurd xwediyê çandekî dewlemend û bedewin.** Di vê çendê de ku çand û zimanê Kurdî dewlemend e tu şikek tune, lêbelê nabe ev çende ji bîr biçe ku zimanê Kurdî hêj di qonaxa xwe ya devkî de ye û ev yek jî pirsgirêkekî herî mezin e, ango kesek dikare dewlemendiya wî zimanî hîs bike ku Kurdî baş bizanibe û berevajî. Di cîhana îro de ger zimanek nehê nivîsîn û îstandard kirin vê nikaribe dom bi jiyana xwe bide û dê ber bi pêşerojên nediyar ên windabûnê ve biherike.

Mixabin zimanê Kurdî yek ji wan zimanan e ku hêj hundirî qonaxa xwe ya nivîskî nebûye û ev yek xeterekî pir mezin e ku gelek aliyan bi xwe ve digire; ji ber ku her zimanek çand û zanisteke taybet ya toreyî bi xwe ve digire û bi mirina wî zimanî ev çend jî dimire û gelek nirxên hêja yên çandî bi xwe re dibe. Zimanek bi vî rengî dişîbê cemeda ber tavê ku roj bi roj tê helandin, heta ku roja winda bûnê.

**Zimanê devkî û zimanê nivîskî**

Peydabûna ziman û tevlîbûna bi jiyana mirovî û çawaniya bikaranîna ziman ji aliyê mirovan vedigere bo serdemê gelek kevin ku felsefeyên dûr û dirêj û cur be cur bi xwe we digire û nêrînên cuda yên zimanzanan vê pirsê hê pêtir aloz dike, lê di vê çendê de ku zimanê devkî berî zimanê nivîskî hatiye rojevê, tu şikek nine û bê guman di çi serdemekê de nehatiye dîtin ku di civakekê de zimanê devkî ji bo xizmetkirina bi vê civakê nehatibe bikaranîn û herwiha tu sedemek nine ku hatine rojeva zimanê nivîskî li berê zimanê devkî erê bike.

Zimanê devkî yan heman axavtin kiryarekî mirovî û herwiha civakî ye û mirov bi saya axavtinê dikare hest û ramanên xwe derbibire û têkiliyên xwe yên civakî pêk bîne. Axavtinê gelek awayên xwe hene, wek mînak: axavtina du alî, axavtina telefonî, axavtina radyoyî, axavtina fermî û hwd... .

Cudahiya di navbera zimanê devkî û zimanê nivîskî de eva ye ku zimanê devkî dikare li her deran were bi kar anîn û giştî mirov dikarin bi vî zimanî biaxivin. Herwiha zimanê devkî ji destûrên ku di zimanê nivîskî de hatine destnîşan kirin ser ber dide û wek çawa mirov ji diyê xwe fêr dibe wisa jî dikare li her deran biaxive, lê zimanê nivîskî li ser pîvan û destûrên taybet yên rêzimanî tê darêtin û taybet bi çîna xwende ya civakê ye û ta qasekê ji zimanê devkî zehmettir e. Di zimanê nivîskî de peyv pêtir wekî mak tên bikaranîn û ev çend jî ji bo parastina ziman û dewlemendkirina nivîsê tê kirin. Zimanê nivîskî jî gelek şêweyên xwe hene, nivîs dikare wekî pirtûk, name, kovar, rojname, nivîsên fermî û ne fermî were rojevê.

Nivîskar di karê nivîsînê de hê pêtir ji axavtinê hûrbîn e, ev hûrbîniye jî ji ber vê çendê ye ku nivîs ji destûrên xwe yê, nivîsînê der nekeve. Bo mînak ger di pirtûka nivîskarekê de hin şaşî bên dîtin, ev yek dikeve ber êrîşa rexnegiran û gengeşeyên zaf li ser vê tên kirin û ev şaşî wek nuxteyên lawaziya nivîskar tên hesibandin, lê şaşiyên ku di zimanê devkî de derdikevin wekî tiştek xwezayî tê dîtin û ev çend şaşiya devkî tê xwendin û axavker dikare her di vê demê de şaşiya xwe serrast bike.

Zimanê nivîskî di dîrokê de jî rolekî girîng dilîze û hin caran nivîsên bi hezaran sal berê niha ên ser kevir û dîwarên îşkevtan dibin bi fakterên zindî ji bo çareserkirina hin pirsên bingehîn û dawîanîn bi hin kêşeyên di navbera dîroknas û zimanzanan, herwiha nivîsên han dikarin çarenivîsa hin gelan biguhirin û rastiyên dîrokê eşkere bikin û bibin mijarên nû ji bo lêkolînên dîroknas û zimanzanan.

**Perwerdehî riha ziman e**

Li gorî zimanzanan çi zimanek ji zimanekî din dewlemendtir nine û sedema ku zimanek dewlemend tê nasîn, berdewamiya ziman, zindî bûn û pêtir kar kirina li ser vî zimanî ye, ango ger mirov bixwaze li ser zimanekî bi nav lawaz lêkolînan pêk bîne, dê bigehe vê encamê ku ev ziman jî qasî zimanên zindî dewlemend e û lawaziya wî zimanî di palketin û kar nekirina bi vî zimanî ye.

Perwerde bûn bi zimanên biyanî dikare bandorên gelek nerênî li ser palketin û lawaz bûna zimanê dayîkê bihêle. Zarok ku bi zimanekî biyanî bê perwerdekirin li bal wî zimanî diya wî wekî zimanekî nefermî tê dîtin û hêdî hêdî zimanê diya vî ji bîrve diçe û zimanê ku pê hatiye perwerde kirin, dibe zimanê nivîsîn û axavtina wî. Bo mînak li Başûra Kurdistanê perwerdehî bi zimanê Kurdî ye, lê li Bakûra Kurdsiatanê perwerdehî bi zimanê Turkî ye, di dema îro de kesê ku li Başûr hatiye perwerde kirin, tevî kesê ku li Bakûr hatiye perwerde kirin, bi zehmetî dikarin ji hev fêm bikin yan jî neçar in bi zimanekî din bi hev re biaxivin; di halekê de ku her du jî Kurd in.

Ev çende xetereke pir mezin e û derbekî giran ji zimanê Kurdî dixe, lê mixabin em dibînin ku li Kurdistana Turkiyê siyasetên asîmîlasiyona Turkan ser dikevin û nifşa nû bi zehmetî dikarin bi zimanê diya xwe bipeyivin.

Emê bi gotinekî mamostayê giramêra Kurdî Mîr Celadet Bdirxan dawiyê bi mijara xwe bînin: **Du hêman hene ku neteweyên bindest dikarin azad bikin, ziman û ol**. Ji ber ku ola gelê Kurd û neteweyên serdest yek e, tenê di destê gelê Kurd de çeka ziman dimîne. Ger Kurd xwe li zimanê xwe bipêçin, rê heye ku helbet xwe bigehînin azadiya xwe. Ger rojek bê ku ev çek jî di destê Kurdan de nemîne, dibe ku navê Kurdan jî **Kurd** nemîne.

# Name û helbest ji Firîda Cewarî(•)



**Têmûrê Xelîl**
**Temur_xelil@hotmail.com**

Vê dawiyê Firîda Cewarî, ku keça Profesor Heciyê Cindî û xanima helbestvanê bi nav û deng Fêrîkê Ûsiv e, ji min ra nameyek û çend helbestên Fêrîk û helbestek jî ku ewî ji Ermenî wergerandî ye, şandine, ku heta niha tu cîya çap nebûne.
Naveroka nameya wê em raberî we dikin:

*"Berî du rojan min çend helbestên Fêrîkê rehmetî di nav kitêban da dîtin. Yek ji wana derheqa bavê te ye rehmetî Xelîlê Çaçan da ne û ew gelek bi dilêşî hatiye nivîsîn. Min ne xwest ez wê helbestê ji ber binivîsim û hema bi destxeta Fêrîk jî ji te ra dişînim.*
*Sê helbestên din jî dişînim, ku Fêrîk sala 1974a, sala ku otonoiîya dane Kurdistanê nivîsî ye.*

***Bi silavên germ - Firîda Cewarî***

Xwendevanên hêja!
Ez vê nameyê dixwezim bi kar bînim û bi xwendevana bidim zanîn, ku Fêrîkê Ûsiv helbestvanê Kurdên Sovyetistana berê yê herî bi nav û deng e. Ez Fêrîkê Ûsiv rind nas dikim û em sê sala bi hev ra xebitîne. Me mala xwe li paytextê Ermenîstanê hîştibû, em çûbûne gundê kurda yê Sîpanê, me di dibistanê da ders dida zarokên Kurda. Ew mamostayê zimanê kurdî bû, ez jî yê matêmatîkayê bûm. Di dema saxtîya wî da hemû helbestên wî çap nebûn. Ewî derd û kulên xwe ji min ra digot û dilê xwe ber min vedikir. Gazindê xwe dikir, digot, ku berpirsyarên weşanxana ku pirtûkên Kurdî çap dikin berhemên wî çap nakin û dewsê yên xwe, kur û qîzên xwe, xanimên xwe çap dikin, ku bi kalîta xwe va ber helbestên Fêrîk ne titşek bûn. Û ewî li ser qeletîyên wan ha dinivîsî:

*-Bona zara dinivîse,*
*Lê femkingê wî yê zara ye...*

Ser yê dinê jî ha nivîsî ye:

*Zêndî şiêra şayîrê mirî*
*Ser navê xwe neşir kirîye*
*Û xwe xema xilazkirî,*
*Hedkê xwendevana birîye:*
*"Tey, we digot: "Tu nezanî,*
*Tu kurmancî qet nizanî...*
*De binhêrin çewan şiêre...*
*Çewan agir... çewan antêx...*
*Hang-bang çewan dizîr-zîre*
*Usan mîna hespê gurêx"...*

Yeke dinê da ha tê gotinê:

*Wî emrî da timê xapand,*
*Her şuxulîda bû "kandrabant".*
*Kesekî ew nanî rayê,*
*Tenê kaltîyê pozda dayê.*

*Ji dereca ew derketîye,*
*Nahaka jî malda ketîye,*
*Difikire, dicedîne -*
*Ça Ezrahîl bixapîne...*

Lê ev helbest hema bêje bi nav kirîye:

**"Xeberdana fêlbaz bi mirinê ra"**

*Mirin, bêterbetiya nekî,*
*Nişkêva min raçev nekî...*
*Ez cahil im, zor û ziring,*
*Heyştê du sal çine wekî...*

*Hela wê bên rojê hê xweş,*
*Wê bimire Elîyê Keleş,*
*Mistê Meter, Mihê Fetî,*
*Mîrata wan hizêmetî*
*Ezê bi dek-dolavê xwe*
*Neşir bikim ser navê xwe.*

Lê wek her cara, vê carê jî wê rastî bi ser keve. Bi çapkirina van çar helbestên Fêrîkê hizkirî em dê careke dinê emekê wî welatparêzê mezin bişêkirînin û xeletiyên wan kesan rast bikin, ku heta niha xwe ber çevê gelê Kurd yê welatparêz dane xuyakirin. Û eger li wê dinyayê jîyîn heye, bira ruhê Fêrîkê ezîz va eyan be, ku keda wî deya naçe.

(•) Dawiyê dixwezim rastkirinekê bikim, ku Firîda Hecî dikaribû nizanibûya. Hevalê Xelîlê Çaçan - Hmayak Manûkyanê Ermenî, ku helbestvanekî navdar e, ev helbesta jêrîn ya bi sernavê **Qisa bîranînê tevî Xelîlê Çaçan** roja mirina Xelîl bi zimanê Ermenî nivîsîbû û roja binaxkirinê li goristanê xwend. Paşê Fêrîkê Ûsiv ew wergerande Kurdî. Lê Fêrîk çarxeteke awa nivîsî ye, ku li ser kevirê mermer yê goristana Xelîlê Çaçan hatiye terişandin. Em ewan herduyan û çend helbestên din li jêr raberî we dikin.

**Qisa bîranînê tevî Xelîlê Çaçan**

**H. Manûkyan (werger: Fêrîkê Ûsiv)**

Me tu dispartî ax-bera, Xelîl,
Pêşberî Elegezê kaw-kubar,
Gişka dikirin şîn-girî, nalîn,
Kerba birîna te ya dilxedar...

Nermebayê wî Elegezê te
Digirîya, ser te dikir lûve-lûv,
Bira û pismam, kes-kinêzên te
Ji sîya serê te mabûne miqûf.

Xwelîya cî-misken te ra bû bêşîk,
Elegez dayka ku dike lûrîn,

Mirina te bû kul, derd û dilêşî,
Xelîlê minî aqilî nûrîn.

Tu çûyî gorê bi rêke kese,
Dilê te ne bir derd û kulê behr,
Tu bûyî Xudêdakî terr-teze,
Li dû xwe hîştî zuret û devter.

Qisa min tev te ret nabe tu car,
Dilê minda biye dimîm û delîl,
Geş û genc bûyî, delal û nîgar,
Lema em ser te dinalin, Xelîl...

**Fêrîkê Ûsiv**

**Ji bo bîranîna X.Çaçan**

Ev Xelîlê Çaçan e li vir
Pal daye bê deng û hes
Yê ku belayî dinê dikir
Kêlm û kilam, deng û bes.

**Dara azayê**

"Xurme" û "Bexda" min pir seh kirîye
Û mitaleke xurmê şîrintir
Dinyake delal minra vekirîye
Li ada Dicle bihuşte bikir.

Wira qulinga kirîye qive-qiv
Û şinge-şinga karvana hatîye
Tucara danîye hejîrêd hingiv
Lê "dewrêş baba" şîret firotîye.

Qewl û qisetê Balûlî Zane
Tevrakirine min heyr û hisret
Hikyatêd "Hezar û yek şevan"e
Xewra kirime bi xewnêd cinet.

Xelîf Mauwa gulêd reng-rengî
Çinîye bo yarê ji baxê delme
Û bin sitirana bilbilêd bengî
Bişkoj vedane gulgez û palme.

Berêd behîva nolanî rişte
Barîne li ser tiralê Bexdê
Lê çi darek jer naha gihîştîye?
Çi barîneke agir û şextê?...

Ew teyrê Balûl buhurtî nîne,
Ew "Mîg"e yanê "Sûxoy"a dijmin
Barê xwe ji Bexda kambax hiltîne
Û dibarîne ser miletê min.

Ew karvanê kesirî nîne
Wekî dişingîya bi beytek şîrin
Ew tanke, tel-tel êrîşê tîne
Ew dek û dolavin, zirx û zincîrin.

Keftar derketîye gelî Kurdistan
Diha wanra çi "şer şerê mêra"...

Şert û şihûdê mêr û camêran
Zûda bîrkirîye ewan qilêra.

Keftor derketîye - kelbê kêlimbêj
Dike birme-birm ser her savêra
Diran tunene, lê bi protêz
Xirav nahêre dendenê zara.

Keftor derketîye - hemlikî hemis
Lê fesal-fesal post diguhêze
Vê dinya diha ji fena aciz
Fenegurîke teze dilîze.

"Avtonomîya" xwe wek sêva kurmî
Ew raber dike kurdêd tebîyetnas:
-"Han tera, divê, ev sêv û hurmî
Ji baxê meyî rêvolyusiya xas".

Lê bi xûna xwe kurd hê av didin
Dara azayê ber dinya-alem
Ku bi qelbê qenc bidin gîhandin
Kurdistanê wek sêveke saxlem.

**Şêlû nekin**

Bira deştêd we li we bimbarekbin, xweyê deşt-dûza
Bira çiyayêd me li me bimbarekbin, me tebiyethiza
Bendekî Xwedê qeysîyê hiz dike, yek dendika wê
Yek bi çikilê dinyayê digre, yek bendeka wê.
Evel û edet we rehetîya ruh wan çiyada dîtîye
Lê hilbet me jî kar û keremek van çiyada dîtîye
Em şêlû nakin bi nixta nemerd tu cew û kanîya
Wekî ser weda dixulxulin tên ji van çiya-banîya.
Na, şêlû nakin em tu ava qet, lê hûn jî feqet
Dema qasekê em xwera hiltên serê çiyayêd xwe
Dinya dêmdelal hemêz dikin bi nûra çevêd xwe
Bi qelbê qencîyê bilind dibin wek çiyayêd xwe tîtan.
Û êmanekî xaliqê xwera tên pevgirêdan
Hûn Xwedê xwekin, hûn jî wê hingê bi cebh û cerme
Nekin tepilxan û şêlû nekin ezmanê ser me.

# Ez dê herim

**Serbest ji Urmiyê**

Ez dê herim
li vî varî
roj ...
der nayê
her derê ewrên reş û tarî
ba ....
ser nayê
çirmisîne
gul
naxwînin
bilbil
miriye
jiyan
eşiq û viyan
Ez dê herim..
bigerim
çiya çiya
esman esman
kulan kulan
bişopînim
ba ...
peyda kim
roj ...
bînim
ew car
ez dê werim
şa û şanaz
bi ...
deng û awaz
li welatê rojê
pîroz kim...
jiyan
da car din
çê be...
eşiq û viyan




**Rojnameyeke mehane ya siyasî û çandî,**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm**

**Navnîşan** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**Email:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

## Weşana bernameyên Radyoya Dengê Kurdistana Îranê li ser Setilaytê

Xwebdevanên hêja, hûn dikarin bernameyên Radyoya **Dengê Kurdistana Îranê** ji rêya Setilayta Dîcîtal bi vî nav û nîşanî guhdarî bikin:

**Satellaite: Hotbird 13 East**
**Freq: 12596 GHZ**
**Ant: Vertical**
**Symbolrate: 27500**
**FEC:3/4**
**Channel: GBTS1**

Bernameyên Radyoya **Dengê Kurdistana Îranê** ji roja duşemî 7'ê Fêvriyê, hevberî 19'ê Rêbendana 1383'an ya Rojî, hemû rojê demjimêr 2 bi dema Ewropaya Rojava, wate çar û nîv (4:30)a êvarî bi dema Îranê li ser Kanala JBTS1 têne weşandin.

## Duyemîn Festîvala Muzîka Kurdî li Silêmaniyê

**Agirî-Ferdîn Sadiqî**




Di navbera rojên 24 heta 28'ê Fevriya 2005'an de li Silamaniyê, duyemîn Festîvala Muzîka Kurdî ji aliyê Yekîtiya Hunermendên Kurdistanê ve hate lidarxistin.

Komên beşdar di vê Festîvalê de ji : Koma Muzîka Silêmaniyê, Koma Muzîka Hunerên Ciwan yên Silêmaniyê, Koma Nalî, Koma Bawacî ya Koyê, Koma Şoreşvana Hunerî ji Duhokê, Koma Muzîka Zaxoyê, Koma Derbendîxan û Koma Muzîka Kelar pêk hatibûn.

## Arşîva muzîkê ya M.Arifê Cizrawî şewitî



**Agirî/Azadiya Welat**- Arşîva muzîka dîrokî ya M. Arifê Cizrawî şewitî. Li Zaxoyê, li çarşiya navendî şewat derket û di encamê de dîrokek bû xwelî. Yek ji dengbêjên navdar yê Kurd M. Arifê Cizrawî ye. Marketa muzîkê ya arşîva gelek hunermendên Kurd lê heye, pêr bi şev şewitî. Di encama şewatê de tenbûra 50 salî ya Cizrawî jî şewitî. Bi şewatê re arşîva muzîkên hunermendên mîna Erdewan Zaxolî, Eyaz Zaxolî, Hesen Cizrawî û Kawis Axa jî zirar dîtin.

Şewat ji ber elektrîkê derketiye

Xwediyê marketa muzîkê, Bavê Merwan da xuyakirin, ku wî pêncî salan ji bo vê arşîvê kedek mezin daye û got; ya şewitî ne mîrasa min, mîrasa gelê Kurd e. Merwan gilî û gazin kir ku hikûmeta Kurdistanê qasî ku girîngiyê dide bazirganiyê, divê ehemiyetê bide huner û çanda Kurdî jî.

Hêjayî gotinê ye, M. Arifê Cizrawî di nav nifşên dengbêjên mîna Hesen Cîzrawî, Meryem Xan, Seîdê Hemo, Remoyê Wethê û Hemdî Brahîm de awazeke giranbuha bû.

M. Arifê Cizrawî, bi navekî xwe yê din 'Bilbilê Kurdistanê' ku di sala 1912 de li Cizîrê ji dayik bû, di sala 1986 de li Bexdayê çavên xwe li jiyanê girt. Qebra M. Arifê Cîzrawî li Duhokê ye, tenê di dema Radyoyê Bexdayê de 333 berhem tomar kirine.

